R:2

**Peyama Deftera Siyasî a PDK Îranê ji bo ....**






R:4

**Dr. Qasimlo û hesretên windabûyî!**



R:5

**Amerîka li ser riya hilbijartinek girîng**



R:11

**Simkoyê Şikak û xebatên wî ên çandî**




Bidestveanîna Mafên Netewî Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal De

# Agirî

Hejmar: 194

5'ê Çiriya Paşîn a 2012'an

Buha: 150 Tûmen


**Peyama pîrozbahiyê ya Sekreterê giştî yê PDKÎ bi boneya cejna Xawenkar**

Xûşk û birayên pêrewê Ola Yarsan!
Pir bi dil cejna Xawenkar ji we pîroz dikim û dibêjim, hêvîdarim ku hûn cejnek pir ji şadî û dilxweşî bibin ser û jiyana we tijî ji keyfxweşî be.

PDKÎ
09.08.1391
30.11. 2012


Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û giştî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Iranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî


**PDKÎ û Komele:**

# Bila AKP daxwazên girevgirtiyan piştguh nexe




PDK Îranê û Komeleya Şoreşgêr a Zehmetkeşên Kurdistana Îranê di daxuyaniyek hevbeş de piştewaniya xwe ji mafên rewa ên gelê kurd û daxwazên rewa ên girtiyên girevgirtî li Turkiyê de ragihand.

Di daxuyaniya han de hatiye ku bila çi din hikûmeta AK partiyê daxwaziyên girevgirtiyan piştguh nexe. Herweha daxwaz ji rêxistinên cîhanî ên mafên mirov dikin ku helwestên bi kiryar li vê derheqê de bigirin. Deqa daxuyaniya her du partiyan li rûpel 2 a Agirî de hatiye.

# Veşarkanêya Komara Îslamî li bernameya navikî de berdewam e

**Yokya Amano, serokê ajansa navnetewî a Enerjiya navikî ragihand ku Rejîma Komara Îslamî li hember lêkolînên ajansa navikî a navnetewî de berxwedanê dike û hevkariya me nake.**

Wî roja duşemî li koma civata NY de da eyanê ku got û bêjên navbera me û rejîma Îranê îsal gelek zêde bûne, lê heya niha tu encamek nebûne.

Herweha Amano daxwaz ji rayedarên Îranê kir ku niyetpakiya xwe li vê derheqê de nîşan bidin. Eve jî nîşan dide ku kirîza rejîma Îranê bi rojava re li dor pirsa etomî di halê xurtbûnê de ye. Lewma serkomrarê pêşerojê yê Amerîkayê renge bikewe bin givaşan daku zextên zêdetir bixe ser Îranê û gefên êrîşê jî kûrtir bike heya ku bikare rejîmê kuntirol bike.

# TV'yên Îranê li ser mahwareya Rûsiyê bilav dibin

**Çavkaniyeke Rûsî ragehand ku Kanalên "IRIB 1 û 2", Kanala xeber û kanala iFilm bi zimanê Farsî û Kanala Kawthar bi zimanê Erebî, Seher TV1 û Seher TV2(Înglîzî, Feransewî, Ordu, Azerbaycanî, Bosniyayî), Pires TV bi zimanê Îngilîzî, ji niha pêve li ser mahwareya Rûsiyê dest bi weşana xwe dikin.**
Herweha pitir ji 30 radyoyên hikumetî ên Komara Îslamî a Îranê weke Radyo Dengê Komara Îslamî, bi 30 zimanên cîhanî li ser heman mahwarê wê bên guhdarîkirin.

Heyamek berî niha Rûsiyê weşana TV û radyoyên Hikumeta Sûriyê li ser mahwareya xwe diweşandin û niha jî seba hisarên civaka cîhanî li ser Îranê, kanalên deng û rengê deshilata melayan belav dike.




## Sergotar

### Gireva rûmetê û hevgirtina netewî

Selîm Zencîrî

Zêdeyî 5o rojan e ku bi sedan girtiyên siyasî ên kurd li girtîgehên Turkiyê de dest bi gireva birçîbûnê kirine daku ji vê riyê ve bikarin xwastekên gelê kurd li bakûr ku çareseriya aştiyane a pirsa kurd û bi fermî nasîna zimanê kurdî ye bînin cih. Ew ku niha di buhara temen û bişkivîna hêviyên xwe de ne û bi çalakiya xwe nêzîkî rawestgeha dawîn ku mirine dibin, li girtîgehê de jî îradeya berxwedan û xebata rizgarî û azadîxwaziya xwe lawaz nekirine û amade ne li pêxem çareseriya doza rewa a xwe de bibin qurbanî. Lewma ew qehremanên gel û rûmeta mirovahiyê ne, lê nabe gel û mirovahî jî wan bi tenê bihêlin. Çûnku rûmeta mirovahiyê nabe ewqas erzan be ku bêdengî û berjewendî li hember de bê hilbijartin.

Madam ku daxwaziyên wan rewa û însanî ne û metoda xebata wan jî aştiyane ye hewcehî bi bihîstina dengê wan û piştgîriya raya giştî a kurd û civaka cîhanî ji daxwaziyên wan û parastina jiyana wan dike. Ji ber ku girîng, jiyana wan e û nabe tu kurd û bi taybetî hikûmet û dewleta Turkiyê rola temaşavanek kerr û lal li hember çalakgerên rojiya mirinê de bilîze û nabe bi çavê nijadperestî, faşîstî, şovenîstî û dûr ji exlaq û pirensîpên mirovahiyê lê binêre, belkî divê gavên bilez û hewce jêre bavêje (her çend ku heya niha neavêtine), nexa berevajî wê, berpirsiyarê mirina wan hikûmeta AKP'ê ye.

Ya ku cihê dilxweşî û hêvîdariyê ye di ast û qadek berfireh de şeqama kurdî li her çar parçeyan de ketiye liv û lebat û çalakiyên piştgîriyê. Li bakûr de bi rojan e ku xwenîşandanên girseyî tên lidarxistin û li gavek din de bi deh hezar girtî li seranserê Turkiyê de dikevin gireva piştgîriyê, herweha li rojhilatê kurdistanê jî bi heman armancê xincî daxuyaniyên piştgîriyê, çend girtiyên siyasî li girtîgehên rejîma Îranê de ketine girevê û piştewaniya xwe ji xwastekên rewa ên wan ragihandine. Li vê mijarê de hevgirtinek netewî ava bûye û erkê her kes û aliyekê ye ku li geşandina vê hest û sehê û qahîmtir kirina dîwarê vê yekîtî û hevgirtinê de xwedî rol û li xebat û tekoşînê de be.

# Daxuyaniya hevbeş a Komelê û Hizba Demokrat

## Derheq girevgirtiyên kurd li girtîgehên Turkiyê de



Zêdetir ji 5o rojane ku komek ji girtiyên siyasî ên kurd li girtîgehên Turkiyê de bona bidestxistina daxwaziyên xwe dest dane gireva birçîbûnê. Bona piştewanîkirin ji girtiyên girevgirtî, civaka sivîl a Kurdistana Turkiyê jî çend roj in ku tevlî vê çalakiyê bûne û nerazîbûnek giştî û xelkî ji bo piştgiriya çalakgeran lidar xistine.

Em piştewaniya xwe ji mafên rewa ên gelê kurd li Kurdistana Turkiyê û van çalakiyên medenî nîşan didin ku li rojevê de ne. Herweha daxwazê ji hikûmeta Turkiyê dikin ku çi din daxwaziyên mangirtiyan piştguh nexe.

Herweha em daxwaz dikin ku rêxistinên cîhanî ên mafên mirov li vê pêxemê de helwestek bi kiryar ji xwe nîşan bidin û erkê mirovî ê xwe jî bi cih bigehînin. Li vê rewşê de em bi baş dizanin ku hemû ew aliyên ku derfet û delîveya xebata sivîl ji van re vekirî ye ji riya aştî û demokrasiyê ve alîkariya çareserkirina pirsên siyasî û netewî ên xwe bin.

Bêguman hebûn û mifahstandin ji seqaya siyasî a vekirî, baştirîn rê ye bo misoger kirina mafên rewa ên gelê kurd li hemû beşên kurdistanê de.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Komeleya Şoreşgerên Zehmetkeş ên Kurdistana Îranê**
**5'ê Çiriya Paşîn a 2012'an**
**15'ê Xezelwera 1391 a Rojî**

# Peyama Deftera Siyasî a PDK Îranê ji bo Kongireya 5'mîn a HAK- PAR'ê




Xûşk û birayên hêja!
Pişikdarên birûmete Kongireya 5'mîn a HAK-PAR'ê!
Îzin dixwazim ji Rojhilatê Kurdistanê li ser navê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, Partiya Pêşewa Qazî Mihemed, Dr. Qasimlo, Dr. Şerefkendî û Partiya Komara Kurdistanê ve silavên xebat û berxwedanê ji we yên rêzdar bikim. Herweha li ser navê birêz Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî ê PDKÎ pîrozbahiya pêkanîn û lidarxistina vê kongireyê ji we dikin.

Wekî xuya û berçav kongireya we di demekê de tê lidarxistin ku Rojhilata Navîn û welatên kurdakincî di rewş û kavdanekî herî hesas û dijwar de dijîn û dem bi dem êş û janên jidayîkbûna guhertinên nû li benda wan in. Di weha pêvajoyeke dîrokî de ku bi xebat û berxwedana gelên herêmê, pêla demokrasî û rizgarbûn ji bindestiyê bûye realîte û waqi'ek haşanekirî, xuya ye ku gelê kurd jî di her parçeyek kurdistana parvekirî de vê gorî rewş û îmkanên heyî, bi metodên aştîxwazane û serdemiyane xebata sivîle xwe ji bo destveanîna mafên siyasî û netewî bidomîne û vê xebata mafxwaziya xwe ji riya diyaloga aştîxwazane û çareseriyên demokratîk bigihîjîne serkevtinê.
Em hêvîdar in ku rayedarên dewleta Turkiyê û xebatkarên gelê kurd li bakûrê Kurdistanê bi berçavgirtina berjewendiyên dûr û nizîke xwe di herêmê de bikarin bi awayekî aştîxwazane û realîstane ji bo çareseriya pirsa kurd û bingeh girtina dostayetî û hevkariya di navbera gelên turk û kurd de pêngavên bi kiryar û piratîk bavêjin û qonaxek nû ji aştî, tebayî û hevkariyê dest pê bikin.

Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê tevî rêzgirtin ji xebat û tekoşîna Partiya doste xwe( HAK-PAR) carek din tekez li ser peywendî û têkiliyên dostaneye navbera her du partiyan dike û cehda vê yekê dide ku ew peywendî li ser bingeha xebat û berjewendiya xûşk û birayênme ên kurd li her du parçên Rojhilat û Bakûrê Kurdistanê de roj li pey rojê mikumtir bibe.

Em weke PDKÎ tevî dubarekirina hevbendî û piştewaniya xwe ji xebata aştîxwazaneye gelê kurd li bakûrê Kurdistanê ji dewleta Turkiyê dixwazin çiqas zûtir be van givaşên li ser girtiyên siyasî, rojnamevan û çalakvanên kurd ku xebata sivîl û legal dimeşînin, rawestîne û hewil bide pirsgirêk û doza kurd li Turkiyê de gorî pîvan û pirensîpên demokratîk û dadperwerane çareser bike.
Carek din tevî pîrozbahiyek germ, heviya serkevtinê bo kongireya 5'mîn a we dixwazin.

**Polîtbîroya Siyasî a PDKÎ**
**4'ê Çiriya Paşîn a 2012'an**

# PDKÎ û Komele li hev civiyan

**Heyetên PDKÎ û Komeleya şoreşgêrên Zehmetkêş ên Kurdistana Îranê, di civînekê de, lihevhatina di navbera xwe de erênî nirxandin û herweha çavaniya rabûn û rûniştina digel opozisyona rejîma Îranê jî xistin ber bas.**

Roja 4'ê Xezelwerê, şandeke PDKÎ bi serperestiya birêz Mistefa Hicrî Sekreterê Giştî yê PDKÎ û herweha heyeta Komeleya Şoreşgêrên Zehmetkêş ên Kurdistana Îranê bi serperestiya Ebdulla Muhtedî, sekreterê giştî yê Komelê, di baregeha Deftera Siyasiya Komelê de, li hev civiyan.

Di civîna her du aliyan de, babetên weke rengvedana lihevhatina vê dawiyê, guhertinên pêwendîdar bi Îran û Kurdistanê û, herweha rewşa opozisyona seranserî ya Îranê bi taybet partiyên Kurdî ketin ber basê.

Lihevhatina ji aliyê herdu aliyan bi erênî û bilind hat nirxandin û derheq birêvebirina vê tekez hatkirin, û herweha şêwaza beşdariya herdu partiyan di civînên opozisyonê de jî xistin ber bas û got û bêjan.




# Teqîna mînê canê şeş kesan jê stand

**Li encama teqîna mînekê de, şeş kes ji endamên girûpa paqijkirina meydanên mîn (mayîn)'an li Merîwanê, canê xwe ji dest dan.**

Roja 13'ê Xezelwerê, şeş kes ji hêzên rakirina mînan li Merîwanê, di dema pûçkirina mînan li herêma Deşt Pîran ya ser bi Bajarê Merîwanê de, canê xwe ji dest dan.



Ev bûyer di demekê de bûy ku desteya navbirî mijûlî rakirina mînên çandî dewrana şerê heşt sale di navbera Îran û Îraqê de bûne.

# Hewlidan bo yekrîziyê li pêxema serkevtinê de



Rambod Lutfpûrî

***Beşê yekem: Yekîtiya navxweyî û yekxistina navmala hizbê***

**"Ji vê hindê zêdetir dijayetiya yektir nekin, yekgirtî û palpiştê hevûdin bin... xatircem bin ku yekîtî û tebahî û bidestve anîna zanistê dibe sedema serkevtina we li hemberî dujmin de...yekîtî û yekrêziya xwe biparêzin...".**

**Pêşewa Qazî Mihemed, ( li wesiyetnameya pêşewa de)**

**Destpêk:**

Bêguman yek ji giringtirîn mercên serketina her bizav û tevgerekê yekîtî û yekrêziya endamên vê tevgerê ye, tenê li yekîtiyeke organîk a endamên vê bizavê de ye ku bizav wek peykerek yekgirtî dikare tevgerek armancdar û kêrhatî bîne holê. Wate bizav wek organîzmekê kar dike ku her yek ji endamên wê, serbarê cudahiya li bîçm û naverok, û erkên xwe de, bihevre û her yek bi awayê xwe, li xizmet armancek giştî û meztir de ne, armancek ku li encam de berjewendiya tak tak ya wan û berjewendiya wan ya giştî dabîn dike.

Diyare ku her yek ji endaman jî li xwe de sîstemek organîk hene, û li komek endamên biçûktir pêk hatine ku pêwendiyeke çirr û bihêz bi hevre hene. Bo mînak heke em organîzma cestyê mirov li ber çav bigrin, em dibînin ku her yek ji endamên leş, bîçm û nawerok û erkê taybet bi xwe hene, û li hemen dem de bi giştî li xizmet armancek taybet û giştî de ne ku jiyana mirov e. Wate koma endamên leş ji bo jiyana mirov pêwîst e, lê di gel vê yekê jî hinek ji endaman erkek jiyanîtir li ser milê wan e û zirardîtina wan dikare metirsiyek zêde ji qas bo mirov hebe.

Di demekê de ku hinek ji endaman li egera têkçûnê de kêşeyê ji bo jiyana asayî ya mirov pêk tînin, lê nabne sedema metirsî û tehlûkeyek zêde li ser jiyana wî. Ew hevkêşeya li nav organîzma her yek ji endaman de jî bi heman şêweyî tê dîtin, bi vê cudahiyê ve ku pêwendiya organîk li wir de gellek çirrtir û jiyanîtir e. Wate têkçûna her yek ji endamên vê beşê dikare giştîtiya endamên organîzma meztir ji kar bixe.

Lewra hevahengiya di nav endamên organîzmên biçûktir de gellek jiyanîtir û giringtir e, ta havkariya li nav endamên organîzma meztir de. Mebest ji anîna vê mînakê selimandina vê rastiyê ye ku ew yasaya li ser biyavê siyasî de jî zal e. Wate li pêwendî tevî basa vê mijarê de em dikarin bêjin ku yekîtî û yekrêziya hemû hêzên demokrasîxwaz ên Îranê pêwendiyeke organîk e ku li pêş de, bo me Kurdan pêwîstî bi yekrêzî a hêzên siyasî ên Kurdistanê heye, û berî wê jî bo me ye demokrat hewcehiya me bi yekrêziya navxweyî heye.

Ji aliyek din ve jî ew dirûşma giring a kongireya 15'ê a PDKÎ "hewildan bo yekrêzî li pêxema serkevtinê" li kiryar de bi vî awayî tê zanîn ku pêngava yekem nemana duberekî û rikeberî, ên nalojîkî li nav refên PDKÎ de ye, û pêngava duyemîn pirsa çareserkirina mesela hevalên me ên berê ye. Pêngava sêyemîn pêkanîna hevkarî û yekgirtinê ye li navbera hêzên resen ên xebata rizgarîxwaziya Kurdistanê de, û dawî hewil û pêngav ku ew jî hevkarî û yekrêzî li gel opozisyona demokratîk a Îranê ye.

Li vê beşa vê gotarê de bi Kurtî emê ronahiyê bixne ser pêwîstî û derfetên yekîtiya navxweyî û yekxistina navmala hizbê, ku pêngavên yekem û duyemîn ê piroseya yekrêziya li pêxema serkevtinê de ne.

**Yekîtiya navxweyî:**

Bûna cudahiya bîrûra û rikeberiyên cuda cuda li her warekê de hebin, li nav her pêkhateyekê de û bi tyabetî li nav rêkxirawên siyasî de jî tê xuyakirin û ta radeyekê jî ne tenê xwezayî ye belku bo çalakiya rêkxirawê hewce ye. Lê bi mercekê ku ew cudahî û rikeberî bingehek siyasî û lojîkî a wan hebe û li xizmet geşe û ber bi pêşveçûna rêkxirawê bi giştî de bin, ne wek vê ku mixabin li nav piraniya hêzên siyasî ên Kurdistanê de tê dîtin ku li pêxema deshilatek bi berçav û hinek binemayên meirifî wek bandbazî, takperestî û navçegerî be.

Tevgera Kurd bi giştî û hêzên siyasî li borî de ew şêwe rikeberiyên nemeirifî mixabin gellek ceribandine û ji bilî jihevcudabûnan tu encam bi dest nexistine, lewra wek yekem pêngav pêwîste ku hêzên siyasî bi mikanîzmek guncaw û kêrhatî, berbirûyê vê diyarokê bibin, û refên navxweyî ên xwe qahîmtir bikin. Bo vê armancê jî avakirina sêstemeke perwerdê li ser binemaya bihêzkirina baweriya netewî, dikare alîkarkerek baş be. Perwerdeyek ku berjewendiya netewî bike tewera sereke, û ji hizra xebata şoreşvanan û ji baweriyên sunetî û nameirifî, wek bandbazî, takperestî û navçegrî lawaz û kal bike.

**Yekxistina hêzan:**

Li çend salên borî de diyardeyek cudabûnan piraniya herî zêde ya rêkxirawên Kurdistanê bi xwe ve girtine û rewşeke bêhêvîtiyê bi ser bizavên rizgarîxwaz ên Kurdistanê de zal kirine. Ew cudabûn ku bi giştî bi dûr ji her terze hokarek siyasî û meirifî bûn, pitir berhema jiyana daxistî û kêm çalakiyên piraktîkî û ew rikeberiyên nalojîkiyane bûn ku me qala wê kir.

Lê ya ku niha û piştî çendîn sal derbasbûn bi ser wan cudabûnan bo xelkê Kurdistanê û endaman û karbidestên partiyan jî eşkere bûye, ew e ku veqetiyan ne tenê her nekariye ku kêşeyan çareser bike, û enerjî û hêza pengurî a li nav refên şoreşê de bixe ger, belku tevgera rizgarîxwaziya Kurd ber bi lawaziyê bir û pirş û bilav û ne hevahengiyek zêdetir ji caran afirand. Wate derket ku dirûşmên çaksazî û baştirkirinê tenê bergek rûkeş û rûbendek bûn ku li ser bejn û balayê kursî û deshilatê hatin kirin û tu reh û rîşeya wan girêdayî bi rastiyê ve nebûn, û teibîr ji xwesteke dilsozane nedikir. Lewra gellek nekêşa ku tewaya ew diyarokên nehez û nesaxiyên kujer, xwe li cesteyê vê hizbê de dubare kir.

Lê serbarê tewaya wan kêşe û giriftên ku wan cudabûnan berbirûyê tevgera rizgarîxwazane a Kurd kirin, ya ku cihê dilxweşiyê ye ew e ku li heyamê sala borî de hêdî hêdî û heya radeyekê rewşek rastbînî bi ser lêkdaneweya layenan de zal bûye, û hêdî hêdî bas ji yekrêziyê hatiye nav rojeva partiyan de. Renge ew basa pêştir jî ji aliyê hinek aliyan ve hatibe ber bas, û manor jî li ser hatibe dan, lê cudahiya vê basê di gel ya ku pêştir hatiye kirin, vedigere bo naveroka wan. Wate gaziya yekgirtin û li hevnêzîkbûnê, rasterast piştî cudabûnê zêdetir diçe xaneya taktîk û manorên siyasî de, lê ya ku niha li rojevê de ye, stratejiyek e ku berhema amadebûna rewşa derhest û berhest a diyalog û têgihîştina ji hewcehiya yekrêzîya li nav tevgerên Kurd di vê serdemê de ye.

Lewra hewce ye ku yekrêzî bibe gotar û dîskorsa zal bi ser pêwendiyên tev layenên ji hev cudabûyî. Pêngava piraktîk jî li vê derheqê de pêwîstî bi berçav girtina sê fakteran heye:

**Yekem,** xwe parastin ji basên nehewce ên pêwendîdar bi kêşeyên berê. Yan bi qewlê Kurd dibêjin "kaya kevn nedne ba".

**Duyem,** lêkdanewe bi awayê hûr û zanistiyane li ser hokarên serek ên wan diyarokan û vedîtina mîkanîzmekê bo şareserî û pêşgirtin ji serhildana dubare a wan.

**Sêyem,** destpêkirin û berdewamiya diyalogê bi bê tu pêşmercekê.

PDKÎ û yekgirtina li gel hevalên pêşîn li pilînoma çarde ya piştî kongireya çardê a PDKÎ, (wate du pilînoman pêş kongireya 15,ê) biryara destpêkirina diyalogê bi armanca yekrêziya li gel hevalên pêşîn hate pesendkirin. Vê biryarê fazek nû ji pêwendiyên her du aliyan de vekir, û hêvî û omêdeke zêde bi alîgirên hizbê bexşî. Piştî vê biryarê û yekem rûniştina heyetên her du aliyan, aso û ronahiyek zêdetir li warê yekgirtinê bi xwe ve dît û dilxweşiyek zêdetir afirand.

Lê piştî heyamekê ji aliyê serkirdayetiya hevalên berê, mercek hate gorê ku pêşeroja pirosê xiste nav gumanê. Herçend li destpêkê de basa diyaloga bêmerc hatibû kirin, lê wan hevalan bi anîne rojeva mercê bi fermînasîna wan, wate fermînasîna navê wan li civînan de ta radeyekê rewş aloztir kirin.

Li rastî de diyarîkirina mercekê ku bixwe yek ji xalên giring û cihê nakokî û gengeşê ye, wek mercê diyalog û danûsitandin û gihîştina bi hev nikare helwestek lojîkî be. Bikaranîna navê PDK ji aliyê wan hevalan ve xala here serekî ya cihê nakokî, û meztirîn astenga li pêşberî hevkarî a her du aliyan bûye.

Niha çawan mirov dikare qebûlkirina xala cihê nakokiyê, bike merca bihevre rûniştinê bo çareseriya nakokiyê. Heke ew yek bihatina qebûlkirin kêşe ew qas nedikêşan û ji mêj ve bû ku pêwendî û hevkarî wê heba. Lewra her du alî wek stratejî çav ji piroseya diyalog û yekrêzîyê dikin, nabe mercek weha danên ku riya diyalogê bigre. Ew xal dikare li diyalogan de bikeve ber bas, ne eva ku qebûlkirina vê bikne pêşmerc, eva bixwe jî şakilîda çareseriyê ye.

Heke kêşeya nav were çareser kirin, çareserkirina kêşeyan ew qas nakêşe. Ji bilî van pirsan jî, heke stratejî û mebesta serekî ya wan diyalogan yekgirtin û yekrêzî ye, çima dibe kêşeya nav em bikne berbest û rêgir li vê rewtê de.

Li dawiyê de jî hêjayî basê ye ku ew destpêşxeriya PDKÎ bo vekirina deriyê diyalog û hewildana pêdagirane bo yekrêziyê li kongireya 15 a PDKÎ, hate pesendkirin. Kongireyê wek erkbi rêberiya nû rasipartiye ku tewaya hewlên xwe bo pêkanîna rewş û seqaya alîkariyê, û li encam de yekgirtina li gel hevalên berê bixe kar.

Li gel vê ku rêberiya PDKÎ dibe, ew qasê hewla xwe bo bi encam gehandina vî erkî bixe ger, lê ew yek hevkêşeyek du alî ye û pêwîstî bi helwestên pêdagirane a her du aliyan heye. Bê guman bi encam gihştina wan hewlan û pêkhatina her du aliyan dibe mînakek bo aliyên nakok ên hêzên Kurdistanê jî, û rewşê bo yekgirtina wan jî pêk tîne. Ji vê hindê jî giringtir ew delîveya baş û gunvaw e ku li rewşek weha de bo hevxebatiya tewaya hêzên resen ên nav bizava rizgarîxwazane a Kurdistanê de tê holê.



# Dr. Qasimlo û hesretên windabûyî!



Kakşar Oremar



Rojek ji rojên havîna bajarê Wien li welatê Avusturyayê bû. Çend kes hatin dîtina wî. Bi lêvên tije ken û mêvanperweriyek kurdane pêşwaziya wan kir. Dîrokê dixwest ku dîsa xwe dubare bike. Wî şîreta bavê xwe ji bîr kiribû ku hê di temenê ciwaniyê da jê re wiha gotibû: "Kurê min ger ecem rastî te hatin, an ji ber wan bireve, yan lêxe û wan bikuje. Yan na dê ew te bikujin. Lawo di bextê te de me ew bêbext û bêwijdan in." Wê şevê dîsa sê egîd û serkêşên bizava kurdan a siyasî di xwîna xwe de sor bûn. Hinek rastî tije derd in û tim bi wijdanê re di şerê mirin û jiyanê de ne: 'Çima wiha bû, çima wiha qewimî, çima wiha kirin, çawa em hatin xapandin?' Pirs li pey pirsa din!!. Lê hezar car mixabin em ji dîroka xwe dersên îbretê dernaxînin.
Erê hinek rastî gelek tehl in, lê ger mirov bi mantiq bin, zû rastiyan jî dipejirînin. Rastiyên ku em dikarin dersên mezin ji wan fêr bibin.

Sala 1989'an li cîhanê xeberek belav bû ku bêtir ji her kesî kurdên Kurdistana mezin xistin nava şokeke mezin. Roja 13'ê tîrmeha 1989'an bû ku xebera qetilkirina Dr. Qasimlo Kurdistan hejand.

Her kesî pirseke wiha ji xwe kir: 'Gelo kesekî wiha zana, siyasetmedar û jîr çawa dikare bi vê rehetiyê bê kuştin?'
Belê... Careke din qedera Simko, Cewer Axa, Hemze Axayê Mengor û Pêşewa Qazî ket bîra me.

Zêdetirî ji 100 salan e ku rayedarên derewîn û fesad ên Îranê bi navê aştî û di çaxê hevdîtinên ji bo çareseriyê de me dikujin. Lê ji ber mercên dem û çax, cih, awayê hevdîtinan û nasnameya terorîstan, terora serokekî mîna Qasimlo careke din ev rastî ji me re îspat kir ku tu dewletek totalîter li Îranê nikare pirsgirêka kurd çareser bike. Di organîzekirina kuştina Dr. Qasimlo de serokomarê wê demê Refsencanî, rêberê olî Xaminêyî û fermandarên leşkerî û îtlaata Îranê beşdarî kirin.

Vê cîdiyeta wan a ji bo kuştina rêberekî kurdan em bi heqîqeteke mezin hesandin ku ew jî siyasetzanî û şexsiyeta bi karîzma ya Dr. Qasimlo bû. Çimkî wî hem li hundir û hem jî li derve karî xebatên xwe yên dîplomatîk û şerê li dijî rejîma paşverû bidomîne. Komara qaşo îslamî karî hemû kelehên li dijî xwe bi agir û hesin ji holê rake, lê wan nekarî keleha Kurdan li Rojhelatê Kurdistanê biherfînin. Vê meseleyê rayedarên 'komara wehşetê' xistibû nava fikarên mezin û neçar wan jî riya bav-kalên xwe (Sefewî, Qacarî û Pehlewî) hilbijartin.
Dr. Qasimlo kesekî pir aştîxwaz bû û kuştina wî ziyaneke mezin da wê prosesa aştîxwaziyê ku li hemû Îranê pêşengiya wê kurdên şoreşger dikirin.

Sala 1984'an bi navbeynkariyên Dr. Qasimlo, Yekîtî Nîştimanî Kurdistan (YNK) bi dewleta Iraqê re ket nava hevdîtinên siyasî. Hingî kêm kes hebûn ku dijberên dîktatorekî mîna Sedam Husên bin û li Bexdayê ji destê wî bifilitin, lê rêzaniyên Dr. Qasimlo yên li ser raz û remzên siyasetê bûn sedem ku Celal Talabanî bi qasî mehekê li Bexdayê bimîne, bi Beisiyan re li ser pirsgirêka kurd biaxive û piştre jî sax ji destê hakimê xwînxwarê Beisî xelas bibe. Li hemberî vê qenciyê çend sal piştre Celal Talabanî jî bû navbeynkarê PDKÎ û dewleta Îranê. Talabanî rayedarên komara îslamî û Dr. Qasimlo anîn ba hev, lê wî nekarî ne li Tehranê belkî heta di dilê Ewropayê de jî rê li ber qetilkirina Dr. Qasimlo ya bi destê cinayetkarên dewleta Îranê bigire. Terorîstên komara îslamî hem Talabanî û hem jî Dr. Qasimlo xapandin.

Xwezî û hesretên Qasimlo ji bo çareserkirina pirsgirêka kêmarên etnîkî yên nava sînorên Îranê wisa mezin bûn ku kurdan di hemû şert û mercên dijwar de pişta wî bernedan. Vê piştgiriya gel hêzên şovenîst û rayedarên komarê xistibû nava wehşetê.

Ew ketin nava hewldanên bêdawî ku dora Qasimlo ji xelkê vala bikin. Ji ber wê jî sala 1979'an hizba Todeya Îranê kesên mîna Xenî Bilûriyan teşwîq kirin ku PDKÎ ber bi dubendiyê ve bibe û bike du parçe. Lê rêzaniya Dr. Qasimlo ew plana Todeyiyên şovenîst û Panîranîstên din vala derxist. Dr. Qasimlo encama hemû hewldanên Xenî Bilûriyan û kesên derdora wî şibandibû dayikekê ku zarokekî mirî anîbû dinê. Dr. Qasimlo jî mîna Simkoyê Şikak û Pêşewa Qazî dixebitî ku kurdan baştir bi dîrok û dewlemendiya çanda wan bihesîne û şexsiyeta wan a şikestî û tehqîrkirî ji nû ve zindî bike.

Berî wî Simko dizanî ku dirustkirina şexsiyet û nasnameyeke neteweyî di dêr, mizgeft, xwendingeh û navendên çandî de ku ji hêla dewletekê ve têne îdarekirin, mimkun e.
Fransî û îngilîzan piştgirî dabûn saziyên wiha. Buhayekî giran dabûn zimanê xwe. Ji ber wê jî Simko zû li bajarên Xoy, Ûrmiye û deverên din dest bi çêkirina komele, xwendingeh û navendên çandî kiribû. Pêşewa Qazî ji vê jî bêtir xebitîbû.

Li ser bingeha rêbaza azadîxwaziyê tirsa ji kurdan li welatên dagirker hê jî pir zêde ye. Tev tirsiyane û ditirsin. Li dijî doza Kurdistanê siyasetmedar, nivîskar, dîrokzan û rewşenbîr tev di çeperekî de ne. Ji Rizaşahê Pehlewî bigire heya Dr. Musediq, Ehmed Kesrewî, û piraniya rewşenbîrên îranî yên îro di çeperê de li dijî kurda yekgirtî ne.

Piştî şehîdkirina Dr. Qasimlo û Dr. Şerefkendî rûçikê rayedarên "komara wehşetê" li cîhanê reştir bû, lê mixabin wan heya niha jî siyaseta li dijî bîr û ramanên azad terk nekirine. Ew mîna ejderhayên ker û kor li dijî guherandina zîhniyeta civakê ne, ew zêhniyeta ku dikare bi yekcarî jiyana civakê biguherîne.

welat.welat.org

# Êrîşa ser balyozxaneyan, ji afirandinên Komara Îslamî!!!



Arif Vêlzî

Di roja 13'ê Xezelwera sala 1358'ê de, hijmarek ji xwendekarên zanîngehê ku, xwe bi xwendekarên peyrewê xeta Îmam dinasandin, bi rêberiya meinewî ya Mela Mihemed Mûsewî Xûînîha, êrîş kirine ser balyozxaneya Amerîkayê li Bajarê Tehranê û piştî dagîrkirin û dest biserdegirtina belge û esnadên balyozxanê, pitir ji 50 dîplomatên Amerîkayî bi rehîn girtin û bi çavên girêdayî ve, ber bi cihek nediyar veguhastin.

Hereketa han ya Komara Îslamî di dîroka pêwendiyên dîplomatîk de, bê mînak bû, û bi awayek eşkere Konvansiyona Vîyenê ku çavdêriya parastina dîplomat û cihên dîplomatîk e, binpê kir û bû despêkek bo serhildana girjî û aloziyên di navbera peywendiyên Îran û Amerîkayê de.
Piştî derbazbûna salekê bi ser vê kiryarê de, Komara Îslamî di 11'ê xezelwera sala 1359ê de, pêşniyara Komisyona taybet bi dîlên Amerîkayî pejirand û bi vî awayî bi beşdariya aliyê sêyemîn, wate Welatê Elcezayêrê, bi awayek nerasterast digel dewleta wî çaxî ya Cîmî Kartêr ketin gotûbêjê.
Piştî heyamek zaf danûsitanên di navbera herdu aliyan de, di 30'ê Befranbara sala 1359'ê, hemberî 20.01.1989'ê, bi vajokirina rêketinnameya Elcezayêrê ji aliyê deshilatdarên Tehran û Waşintonê de, piştî 444 rojan desteserbûnê, dîplomatên Amerîkayî ji aliyê deshelata Xumeynî ve serbest hatin berdan û îzna çuneder ji xaka Îranê bi wan re hat dan û bi vî awayî kêşeya di navbera her du dewletan bi berçav dawî pê hat.

Ferheng û kultûra êrîşkirina bo ser balyozxaneyên welatên din ku di urfa dîplomatîk de bi wateya êrîş bo ser axa vî welatî tê hejmar û, digel tu yasa û rêsayên navnatewî ên peywendîdar bi babetên weha hev nagire, bo cara yekem li Îranê û li nav deshelata melayan de ji dayîk bû, û bi dagîrkirina Balyozxaneya Amerîkayê li Tehranê jî dawî pê nehat.
Belkî dûre me dît ku di doma kiryarên weha de, êrîş kirin ser Balyozxaneyên Welatên Erebistana Seûdî, Danmark û herweha di 8'ê Sermaweza sala 1390'ê de, ji aliyê kinc şexsiyên bi nav xwendekar ve, hevdem êrîş kirin ser du bînayên diplomatîk ên Berîtanyayê li du cihên Bajarê Tehranê û, piştî şewitandina ala û destbiserdegirtina belge û esnadên nava balyozxaneyê de, heyamê çend demjimêran şeş dîplomatên Berîtanî bi dîl hatin girtin û bi vî awayî pêwendiyên siyasî di navbera du welatên Îran û Berîtanyayê di gel aloziyê berbirû bûn û di encam de, ev hereketa han ji aliyê piraniya welatan ve û hat mehkûmkirin û hindek welatên rojavayî jî, bona nîşandana narazîbûna xwe li hember vê hereketê, balyozên xwe ji Tahranê vexwendin.

Berdewamiya êrîş bo ser cihên dîplomatîk heya niha, vê yekê diselimîne ku herçend pitir ji sî sal bi ser bûyera 13'ê Xezelwerê re derbaz dibe, lê deshelatdarên vê rejîmê bona parastina deshelata xwe, di her demekê de ku pêwîst be, dîsan jî urf û yasayên dîplomatîk dê binpê bikin û kiryarên bi vî awayî ducarî bikin.



# Amerîka li ser riya hilbijartinek girîng



Ebdula Hicab



Karîgeriya bahoza "Sandy" li ser hilbijartina serokkomariya Amerîka, eger demdirêj nebe jî, wê li ser hin kesên ku hê carê biryar nedane ka dengê xwe bikar bînin an ne, an dengê xwe bidin kê bê bandor nebe. Di rewşekê de ku li gor rapirsînan, navbera dengên her yek ji berendamên Demokrat û Komarîxwaz hindî ji roja hilbijartinê nêzîk dibe kêmtir dibe , ew deng wê bikarin çarenûsa hilbijartinê biguherin. Gelek asaiye ku di rewşên qeyranê de her demê serkomar, eger ji xwe berendamên dewreyek nû ya serokatiya welat be, hem derfet û hem jî tirsa hindê heye ku şansekê qazanc bike an bidorîne. Çend rojên pêşiya me û şêweya dan û standina û birêvebirina rewşa qeyraniye ku ji ber bahoza Sandy hatiye pêş wê ji bo Barack Obama giringiyek taybet hebe.

Di gel wê rewşê, şêweya propagendeya her du berendaman û mijarên ku her yek ji wan tînin rojeva civaka Amerîka jî, wê li ser encamên hilbijartinê bê bandor nebe. Her yek ji berendaman bi milyaran dolar ji bo belavkirina mesaja xwe ya siyasî bi kar tînin. Giraniya propagendayê di rojên beriya hilbijartinê tê kirin. Lê ji ber bahoza rabûyî û pêwîstiya herêmên ku ketine ber karesata lehiya ji ber bahozê bi alîkariya dem û dest, her du berendaman propagendaya hilbijartinê ji bo demekê sekinandin. Ew rawestandin dikare karîgeriyê li ser şansê Mitt Romney danê, ji ber ku wî pitir ji serkomar pêwîstî bi hindê heye ku mesaja xwe ya nû bigehîne hilbijêran.

Lê bi tenê rewşa qeyraniye niha û propagendeya hilbijartinê çaresnûsa serokkomariya Amerîka diyar nakin. Her yek ji berendaman nûneratiya têgeh û nêrînekê dikin ku kêm an zêde di nava civaka Amerîkayê de têne nas kirinê. Ya ku ji hilbijartinekê re bo hilbijartina din karîgeriyê li ser şansê berendamekê datîne, şiyana wan ji bo bi destxistina baweriya xelkê li ser wê projeya kar e ku ji aliyê her yek ji wan ve tê pêşkêş kirin.

Serokkomar Obama çar sal dem hebû heya ku nîşan bide wê çawan arîşeyên civaka Amerîka û pirsgirêkên welat di warên siyasî, abûrî, civakî, kar, tenduristî, pîşesazî û navneteweyî de çareser bike. Wî bi dirûşma Goran "Change" û bi riya hêza xwe ya bi destxistina baweriya xelkê ve hilbijartina serokkomariya Amerîka qazanc kir. Niha piştî çar salan, civaka Amerîka dipirse ka gelo serokkomar di wê demê de çi guherî û heya ku sozên xwe anîne cî?

Di gel ku Obama di wan çar salan de karîbe hin guhertinan di sîstema tenduristiya Amerîka de pêk bîne, pêşiya kûrtirbûna qeyrana abûrî bigre, bêkariyê kontrol bike û heya qederekê ji asta wê kêm bike, hêzên Amerîka ji Îraq û beşek wan jî li Afxanistanê paşve bikêşe û di asta navneteweyî de hin îmaja Amerîka biguhere, lê gelek sozên ku wê demê dabûn bi cîh neanîn. Yek ji wan sozan ew bû ku girtîgeha Guantanamo di nava salekê dê dabixe, lê piştî çar salan hê ew girtîgeh vala nebûye. Di warê abûrî de hê baweriya sedîsed venegerandiye bazarê û rewşa jiyana wê beşa civakê ku di belengaziya mutleq de dijî hin hêvî hebûn ku di bin siya siyaseta Obama de baştir bijîn neguheriye. Bi kurtî Obama jî weke hemû serokkomarên din çar salên xwe tije kirin bêy ku Amerîka bi awayek wisan guherî be ku ew beşa civakê ku li benda guherînê bû amade be kedek zêde bide heya dubare wî hilbijêre.

Mitt Romney nûneratiya balê rastrew di aliyê rastê ya siyaseta Amerîka de dike. Dîtinên wî di warên civakî, malbat û rola dezgehên dewletî di jiyana taybet de bi dîtinên Obama û Demokratan re ji bingeha xwe ve cuda ne. Ji bo Romney û Komarîxwazan nirx û kevneşopiya civak û siyaseta Amerîka beriya her tiştî ne. Ev nirx û kevneşopî xwe di nebûna kontrola dewletê, pêşbirkêya bê kontrol di bazarê de, serbestiya tak ji bo gîhana bi xeyala Amerîka "American dream" û serdestiya bê reqîbe Amerîka di Cîhanê de dibîne.

Lê xuya ye ku mijara siyaseta navneteweyî di hilbijartina wê carê de zêde bala hilbijêran nakêşe. Lewma mijarên weke kuştina Bin Laden, çûyîna hin dîktatoran li Rojhilata Navîn û şerê li Sûriyê zêde neketiye nava basên hilbijartinê. Lê eger faktorek çarenûssaz nebe jî, rewşa navneteweyî û bi taybet siyaseta girêdayî bi qedera Îsraîlê re, weke faktorek giring dikare bandorê li ser rojeva hilbijartina Amerîka danê. Ew yek di basa li ser projeya Emtomiye Îranê de ku yek ji mijarên basa di navbera her du berendamên serkomariyê de bû derkete holê.

Siyaseta Amerîka li pêwendî di gel Îsraîlê de bi giştî, ne girêdayî bi hindê re ka kî û ji kîjan partiyê derbasî Koşka Sipî dibe ewe ku bi her awayî ewlekariya Îsraîlê biparêzin. Ji bo her du partiyên serke û xwedî îmkane Amerîka, gefên cidî li ser Îsraîlê xeta sor e.

Lewma kî ji her du kandîdayan bi ser dikeve, heya Îsraîl bi xwe nexwaze, wê rê nedin ku Îran bigehe astekê ku çekên atomî bi dest bixe. Êdî renge Barack Obama bi awayekê bixwaze pêşiya Îranê bigre û Mitt Romney bi awayek din, lê her du wê xeta sor ji bo Îranê diyar bikin. Her çend di wan çar salên derbasbûyî de Obama bi awayek berçav zextên abûriye li ser Îranê zêde kirin û buhayê diravê Îranê li hember diravê xwedî nirxe bîhanî de şikand, lê nekarî li pêşiya Îranê astengiyek cidî çê bike. Niha eger Mitt Romney bê ser kar, renge îmkana hindê hebe ku xeta sore li hember Îranê pir rengtir xuya bike.

Ji bo her du berendaman kontrola rewşa Sûriye û Lubnanê wê mijarek sereke be ku pishtî serketinê dikeve ser maseya wî kesê ku bi ser bikeve. Romney renge bi nêzîkbûna bi riya çekan û Obama bi hevpeymaniyên navneteweyî û bi riya dost û hevalbendên xwe ve, lê her du jî bi cidî û bi awayek raste rast wê bi wê mijarê re rû bi rû bibin. Ji ber ku pêşketinên li Sûriyê bi awayek raste rast karîgeriyê datînin ser Lubnanê, û rewşa Lubnanê dikare ji bo ewlekariya Îsraîlê û pêşeroja wî welatî xwedî bandorek sereke be.

Her du berendam dizanin ku Rojhilata Navîn bi giştî ber bi guherînek bingehîn ve diçe ku ew guherîn dikare berjewendî û siyaseta Amerîka li herêmê bixe bin bandora xwe. Lewma bo wan avakirina hevpeymaniyên nû û pilanek nû ya stratêjîk ku her nebe ji bo 10-20 salên tê bikare berjewendiyên Amerîka misoger bike wê xalek sereke be. Di wê çarçoveyê de pilanên Komarîxwazan zelaltir in.

Pirsa Kurd ne di rojeva hilbijartina Amerîka de ye û ne jî karîgeriyê li ser wê pêvajoyê datîne, lê bêguman siyaseta Amerîka di çar salên pêşiya me de wê bandorê li ser rewşa Kurdan û statuya gelê Kurd li Rojhilata Navîn danê. Di derbarê pirsa Kurd de heya niha ne Demokaratan û ne jî Komarîxwazan bi awayek vekirî tu piroje an dîtin pêşkêş nekirine. Lê tu guman nîne ku her duyan jî pirojeyên xwe yên taybet di wê barê de hene. Ya ku di navbera xetên nenivîsandiye siyasetên her du aliyan de derdikeve ewe ku Komarîxwaz pir li dijî guhertina statûsya siyasî û cografî li Rojhilata Navîn nînin, eger bê û aliyên nûye xwedî piroje hebin ku bikaribin baweriyê hem bidin xelkê xwe û hem jî bidin hêzên xwedî berjewendî.

Hilbijartina serokkomariya Amerîka her çi qas bi awayek raste rast nekeve bin bandora bahoza xwezaiye «Sandy», lê wê di çar salên pêşiya me de bi gelek bahozên destsaz re rû bi rû be. Gelo bahoza Sandy tenê nîşaneyek xwezayî ji wan bahozan e ku serokkomarê nû pêwîste di dema serkomariya xwe de jê re amade be? Piraniya arîşeyên navneteweyî ku cîhana îro bi wan re rûbirû ye gîhane qonaxekê ku di wan çar salên pêşiya me de an dibe bêne kontrol û çareser kirin, an wê bi awayekê bandorê danên ser siyaseta cîhanê ku êdî Amerîka û hevpeymanên wê neçar bimînin li hember wan serî bitewînin.

# Bihara kurdî birêve ye



Fatih Salihî

Bihara kurdî bêjeyek namo nine, belkî bi liber çavgirtina van guhertinên ku li du salên derbasbûyî de li qada nawçe û cîhanê de li dor guherîna desthilatan hatiye rojevê, dikare têgehek bihêz be bo gihîştin bi xwast û daxwaziyên netewa kurd li çar welatan de û bi taybet li sê welatan de ku çarenivîsa gelê kurd girêdayî ye bi şêwaza desthilatdariyê li wan welatan de.

Bihar nîşana vejiyan û rabûna surûştê ye û li ser vê esasê bihara kurdî dikare bibe destpêka qonaxek nû ji ast nasandin û cihgîrkirina nasnameya netewî a kurd li coxrafiyaya siyasî a devera Rojhilata Navîn û siyaseta coxrafiyayî a welatên deverê û superhêzên cîhanê ku karîgerî li ser pirsa rewa a neteweya kurd li van welatane de heye ku kurd bi ser van de hatine parve kirin.

Guhertinên vê daviyê ên Sûriyê û rola kurdan li bidestvegirtina desthilata herêmî a xwe tevî nerazîbûnên vê dawiyê ên kurdistana Turkiyê û girevgirtina bajarên kurdakincî li pêxem berevanîkirin ji maf û şunasa xwe û ew pêşketinên ku niha li herêma Kurdistana Îraqê de em dibînin, herweha rewşa xirab û aloz a Komara Îslamî a Îranê û rola opozîsyona kurd li pêxem yekxistina mala kurd bona avakirina enî û bereyek yekgirtî û li vê navberê de hevalbendiya her du partiyên demokrat û Komele û hêza pengurî a neteweya kurd li Kurdistana Îranê bo gihîştin bi mafên rewa ên xwe ku zêdeyî 67 salane li çarçoveyek modern de xebatê jêre dike, vê rastiyê bo me eşkere dike ku bihara kurdî dûr nine weke têgehek guherînxwaz û şûndaner bikewe nav hevkêşeyên deverê û destpêka qonaxek nû ji xebat û tekoşîna hêzên kurdî û neteweya kurd li Rojhilata Navîn de be.

Lê ya girîng, yekêtiya hêzên kurd li dor van guhertinên li rojevê de û ders wergirtin ji van ceribînan e ku ji mere dibêjin siyaseta coxrafiyayî a welatên deverê berdewam pêşiya cuxrafiyaya siyasî a kurd girtiye û vê carê ger guhertinek kûr rû bide û ger netewa kurd nekare bi awayekî yasayî bi xwast û daxwaziyên xwe bigihîje, rengê vê hindê nade guhertina han destkevtek dilxwaz bo kurdan bi dûre be.

# Îdam, siyasetek bo fetisandina civakê



Dara Natiq

Rejîma dîktator û mirovkuj a Komara Îslamî a Îranê, yek ji wan rejîman e ku bi hegera birêvebirina rêjeyek berçav ji îdamkirina hemwelatiyan, bi komara sêdare hatiye nas kirin û pêka rapora cîhanî a mafê mirov, bi pileya duhem di warê binpêkirina mafê mirov û birêvebirina hikmê îdamê di asta cîhanî de tê hesibandin.

Ew siyaseta han a rejîmê, çavkanîgirtî ji vê eqliyeta hişk û îdeolojiya paremayî a Wilayeta Feqîh, wek nawenda sereke a tev mosîbet û rezaletiyane ku îro welatê me pêve bendewar e û qedera civaka milyonî a Îranê ber bi rewşek aloz û nediyar ve dibe.

Siyasetek mirovkujane ku Komara sêdarê bo heyamê zêdetir ji sê dehikane ku bi awayek sîstematîk û hovane, li dadgehên nîzamî û çend deqîqeyî de û bi dûr ji her terze yasa û zagonekî mirovî, di bin nav û sûçên cur bi cur de, cezayê îdamê bi ser hezaran mirovê azadîxwaz û welatparêz yên welatê me de sepandiye û birêve biriye. Siyasetek ku heya îro jî bi awayek berçav birêve diçe.

Merema sereke û biyom a rejîmê ji vê kiryara dijî mirovî, tirsandina xelkê û çêkirina rewş û zirûfek bi tirs û xof û bêdeng kirina civaka azadîxwaz û mafxwaz a Îranê ye.

Siyasetek ku serbarê ev hemî zext û givaşên hovane, nekariye, pêş bi îradeya şoreşvanî û mafxwazane a gelên têniyê azadiyê di vî welatî de bigre.

Ligor rapora Ehmed Şehîd, rêporterê taybet ê netewên hevgirtî, Komara sêdarê tenê di heşt heyvên derbasbûyî de, bi sedan kesî lidarve kiriye. Zêdetir ji deh li sedêye wan îdaman bi bi merema tirs û beicandina civakê, pêş çavê xelkê û di cihên giştî de reêve diçin. Her ligor wan amarên fermî di rojekê de, du kes di îranê de, tên darvekirin.

Ewa di demekê de ye ku amara îdaman zor li vê zêdetire û rejîm parek ji zîndaniyan di bin eşkencê yan bi avayek veşartî darvedike û nadirkîne. Lewma rêjeya îdamê li Îranê zor li vê zêdetir e ku rejîm bas jê dike. Her di deh rojên derbasbûyî de, pêka nûçegehaniyên ser bi rejîmê nizîk bi 20 kesên din ku piraniya wan Kurd bûn bi hinceta qaçaxa madên hişber hatine darvekirin.

Şîpelên berfireh yên darvekirina hepsiyan û îşkence kirina wan bi taybetî di rojên derbasbûyî de, carek din civaka mirovdost di cîhanê de, heyrîmay û nigeran kir. Rêkxistinên mafê mirov û civaka navneteweyî carek din, serbarê şermezarkirina siyaseta mirovkujane a rejîmê, nigeraniya xwe ji rewşa aloz û nebaş a bitirs a mafê mirov di Îranê de da eyanê û daxwaza sekinandina maşîna îdama Komara Îslamî bûn.

Lê serbarê şermezarkirina Komara Îslamî di asta raya giştî de û daxwaza civaka navneteweyî di heyamê sê dehikên derbasbûyî di pêxema sekinandna maşîna îdamê di Îranê de, mixabin pêvajoya tepeserkirin û zext û givaş û binpêkirina mafê mirov û darvekirnê, roj li pey rojê li zêdebûnê de ye.

# Niqurçk



Selam Simaîlpor

Ehmedê Xatemî pêşnimêjê Tehranê, gotiye: "Komara Îslamiya Îranê tu hewcehiya wê bi vir û direvan nine û niha jî tu nerazî û rexnegir li girtîgehên me de tunînin".

Em jî dibêjin wusa ye, heya ku "Teqiye" hebe, ne hewcehî bi vir û direva heye, û ên li girtîgehan de her hemû jî alîgirê rejîmê û kurên Xamineyî û zarokên bê dev û ziman ên Ayetullah Cenetî û Mîsbahî û Felahiyan û Larîcanî û hwd..ne, û ew cihên ku rexnegir û neyar têde dihevin, ne girtîgeh belkû hotêlên Hîlton û Şîraton û Kontînantal û hwd...ne. ku weha bû çepikek tund ji bo mêrên rstbêj ên serdemê "Direv serdestî" (direv salarî)yan.

Kazin Sidîqî pêşnimêjê zapas ( demikî yan yedek) ê Tehran gotiye: "Wîlayeta Feqîh wek serkomar yan şah nine ku bi her bayekê biheje".

Xwedê ji te razî nebe, ya rebbîîî! niha ku hûn bas ji serkomarê bin ebayê Axa dikin, aliyê kêm bedela "ba" bêjin " qeza û qeder", yan lîstika çarenûsê", yan tiştên weha, ne tirrên piştî kuxîna dîqil.

Elî Qazî Esker nûnerê Xamineyî li warê karûbarên hecê daxwaz ji berpirsyarên Seûdî kiriye ku bona vê ku hinek mesele li navbera xûşk û birayên hecî de nemînin, gelaleya cudakirina nêr û mê'yan li hecê de were cîbicîkirin, tê pêşbînî kirin ku li pêşerojê de birayên hecî bo tewafa Antalyayê bên şandin û xûşkên hecî jî li mal de ji bo serkevtina wan doayan bikin. Me jî mizgîniyek ji bo tev alîgirên cudakirina nêr û mê'yên cîhanê heye, ew jî ew e ku bi wan zûkatiyan, pêç û mohre (wate nêr û mê) yên rejîma we bi tewahî ji hevudin cuda dibin, û wê hûn tehwîlî oraqiyê bêne dan, hey peykana 47! Hey trombêlên têkçûyî!!!

Mihemed Neqdî fermandarê Besîcê gotiye: " Sipah di Sûriyê de tune ye, eva alîgirên Beşar Esed in ku wek besîciyan dixebitin".

Hehehehe! Dosto dixwaze mehtê bike, lê nizane çawan bi bejn û balê bêje, lewra wî dike pînê dirryayî dihêle!.

Seyîd Ehmed Elemelhoda pêşnimêjê Meşhedê gotiye: " Gendelî û diziya ji bankên Îranê de tu pêwendiya wê bi deshilatdarên nizamê ve nine, û nabe xelk wan tawanan bêxne stûyê berpirsyarên nizamê". Ne, ne, ne, xwe qet nîgeran neke!

Jiber ku li welatê destçêkiriyê we de, tu tiştekê pêwendî bi tiştek din we nine, tenê formoleke giştî heye: Hemû başiyek li bin ebayê we de ye, û hemû xirapiyek jî li bin serê peyva cadûyî a "Dijjjjjjmin" de ye!.

## Nameyek vekirî ji Erdoxan Serokwezîrê Tirkiyê re

**Îdo Babaşêx:**

**Erdoxan! Eger tu dîroka Êzidiyan li Tirkiyê bixwînî, dê zanî, ku bav û bapîrên we gelek zor û zilm ji Êzidiyan kirine**



Îdo Babaşêx Berpirsê Ofîsa Kar û Barên Êzîdiyan li Hewlêr û Rawêjkarê Serkomarê Îraqê Mam Celal Talabanî di warê Kar û Barên Êzîdiyan de, li ser axaftina Serokwezîrê Tirkiyê Erdogan derbareyê Êzîdiyan de, nameyeke vekirî ji Erdogan re şand. Îdo Babeşêx di nama xwe da weha dibêje:

**Cenabê Sorokweziranê Tirkiyê,**

Ez kurdekî Êzidî me ji Îraqê. Min dest û darê welatê we şopandiye û min wesa bawer dikir, ku partiya we partiyekê miyanrew e, ne tundûtîj e beramberê ol û bawerên dî. Belkî gelek caran tê gotin, ku partiya we dibit model bo partiyên Îslamî li deverê da. Velê diyar e ez û gelekên wek min şaş bûn û diviya pirtir şiyar bin.

**Berêz Erdogan!**

Ez li Konferansa Navnetewî a Êzidiyan li Amedê beşdar bûm û pir sipasiya şaredarên Amed û deverên din û her wesa siyasetmedarên deverê bi taybet berêz Ehmed Turk dikim û min wusa bawer dikir cenabê te û hikumeta we van şaredariyan spas bike û daxwaza xalkê xwe cîbicî bike, ku biratiya xwe ligel hemû ol û dînên Tirkiyê bi hêz û tund bike û dawa ji Êzidiyên Tirkiye biket bizivirin welatê xwe. Ew camêrên Konferans girêdayîn, negotine "em Êzidî ne", belku gotin "Êzidî birayên me ne û beşekî girîng ji gelê Kurd û gele Tirkiyê bi giştî". Velê diyar e cenabê te beravajî hat meydanê û eger rast e tu nizanî Êzidî kî ne ji te ra kêmasî ye û eger tu dizanî û vê olê kêm bikî dîsan ji tê ra kêmasî ye.

**Cenabê Serokwezîr,**

Bi sedan belku bi hezaran sal e Êzidî li Tirkiyê dijîn û heta destpêka çerxe borî Êzidî her ji Batman heta Qers û Wanê hebûn. Eger tu dîroka Êzidiyan li Tirkiyê bixwînî, dê zanî, ku bav û bapîrên we gelek zor û zilm li Êzidiyan kiriye. Li hezar salên borî da bi sedan hezar Êzidî hatin kuştin û bi hezaran gund wêran bûne û bi sedan keç û jin hatin revandin û êxsîr kirin. Ji aliyekî din ve hêşta li sala 1601'ê waliyê Musil mirovekî Êzidî bûye û navê wî Mîrza Dasinî bû. Niha jî hinek Êzidî li Wêranşar, Mîdyad û Batmanê dijîn û hez nakin welatê xwe bi cî bihêlin.

**Cenabê Serokwezîr,**

Demokrasî bi dabîn kirina mafên zoranî û piraniyê nayê cî bi cî kirin, belkî bi dabîn kirina mafên kêmaniyan tê naskirin. Niha zemanê gilobalîzmê ye, her kes û li her cî dikare mafê xwe bixwaze û niha civata mirovatiyê ber bi demokrasî û mafên mirov û biratiya gelan ve diçe.

Hêvîdar im cenabê we pitir li ser mesela kêmnetew û kêmaniyan rawestin û Tirkiyê ber bi tenahî û xweşiyê ve bibin.

**Îdo Babaşêx**



# Dadgeha Îran Tirîbûnalê rejîma Îranê mehkûm kir

**Dadgeha Îran Tirîbûnalê Rejîma Komara Îslamî bi Cînayeta li dijî mirovahiyê tawanbar kir û îdamên li dehsalên 60'î de mehkûm kirin**

Beşa dûyemîn a dadgahê ku taybet bû bi îdamkirina girtiyên siyasî ên dehsala 60'î di Îranê de, bi dengdana dadwerên dadgehê dawî bi karên xwe anî.

Dadgehê piştî gotinên bi dehan girtiyên siyasî derheq îdamên dehsala 60'î, Rejîma Îranê bi cînayet li dijî mirovahiyê tawanbar kir.

Malpera taybet bi dadgehê ragehand ku di beşa yekem a dadgehê de 80 kes weke şahid û di beşa duyemîn de, 75 kes ji endamêm malbatên goriyên dehsala 60'î di dadgehê de beşdar bûn.




## Rojev



# Peyama Îsraîl bi Îran, Hemas û Amerîka

**W:Selîm Zencîrî**

Hefteya derbasbûyî cebirxaneyek nîzamî a Sûdanê li encama êrîşa nepenî a balafirên Îsraîlê de bi yekcarî şevitî û çend kesan jî jiyana xwe ji dest da. Dewleta Sûdanê demildest bûyera han xiste stûyê Îsraîlê. Her çiqas ku rayedarên Îsraîlê heya niha li ser bûyera han tu bersivek nedane. Tê payîn ku Sûdan kanalek e ji bo şandina çek û teqemeniyên Îran bi Kerta Xeze û Hizbulahê.

Roja piştî teqînê, rayedarên Îsraîlê Sûdan tometbar kirin ku ji gurûpên çekdar ên alîgirê Îranê di deverê de alîkariyên locestîkî dişîne. Welatên Erebî jî ku li dor vê êrîşê dilxweş ninin, lê di heman dem de nîgeranê Komara Îslamî ne, bêdengî li hember vê bûyerê de hilbijartin.

Rojnameya Taymz a Londonê jî çawaniya bûyerê bi vî awayî weşand: Heşt balafirên şer (F 15) ên Îsraîlê li ser behra sor re derbas bûne û ji rojhilatê ve derbasî xaka Sûdanê bûne. Pêka rojnameya han 4 ji wan balafiran cebirxaneya çekan bombardoman kirine. Rojname dide zanîn ku endamên Spaha Pasdaran a Îranê cebirxaneya han îdare û birêve birine.

Lê li pişt bûyera han, rastiyek kûrtir û berçavtir ji teqandina cebirxaneyê heye. Çend texmîn û analîz li vê derheqê de hene ku renge tenê yek ji wan durust be.

**Manovra Îsraîlê ji bo êrîşa pêşwext li ser Îranê**

Gorî rojnameya Taymz, êrîşa han weke piroveyek bo êrîşa ser nawendên navikî ên Îranê tê payîn, ku hevdem cebirxaneyek berhemanîna çek û teqemeniyan û mûşekên balistîkî li Sûdanê ku ji aliyê rayedarên Îranî ve dihat birêvebirin, ji nav bir.

Şirovekarek enistîtoya Waşingtonê bo siyaseta Rojhilata nêzîk daye zanîn ku dûyratî û navbera Îsraîlê bo cebirxaneya jinavçûyî pitir ji nawendên hesteyî ên Îranê ji wî welatî ye.

**Hişdarkirina Îranê**

Taymza Londonê radigehîne ku êrîşa Îsraîlê weke nîşandana desthilat û hêz û hejmûniya xwe bi armanca tirsandina Îranê û neçarkirina wê bona got û bêjên li ser pirograma bi şik û guman a navikiye wê ye; ne pirove û manovr bo êrîşa pêşwext li ser Îranê. Li rastî ji eva nimayîşek hêz û desthilatê bû ji aliyê Îsraîlê ve, lê tenê îşareyek biçûk e bi şiyan û karînên nîzamî ên xwe.

**Xwe berhevkirin bo şer li gel Îran û Hemasê**

Şirovekarên siyasî mêjdem e ku pêşbînî kirine ku Îran li dijkiryara bi êrîşa Îsraîlê bo ser xaka xwe de, gurûpên dijî Îsraîlî ên girêdayî xwe weke Hemasê bi encamdana êrîşan tûj dike. Li egerek weha de gelo armanca Îsraîlê ji êrîşê, lawazkirina şiyana Îranê bo vî karî bûye? Lê Katrîn Zîmir Men ji enistîtuya Întir Pirayz a Amerîka li ser vê baweriyê ye ku renge Îsraîl bona ji kar xistina hêla locestîkî a bo Hemasê, dest daye êrîşek pêşgîrane. Li pêvajoya şerê Xezeyê li sala 2008- 2009'an de ji hêla han dihat mifahstandin. Yan jî renge kiryara han reaksiyonek be li hember hewl û tekoşîna Îranê bona her çiqas pirçek kirina Hemasê.

**Peyamek ji bo Amerîka**

Rabirt Faks li weşana News Week de eva daye zanîn ku êrîşa Îsraîlê peyamek e ji hêla Natanyaho ve bo serkomarê nû û pêşerojê ê Amerîka li dor vê yekê ku derfeta biryargirtinê li ser berbirûbûna fîzîkî bi Îranê re pir kêm e. Ji ber ku êrîşa Amerîka bo ser Îranê, pitir ji êrîşa Îsraîlê bi tena serê xwe egera serkevtinê heye, lewre Natanyaho tercîh dide ku Amerîka rêberiya wê êrîşê bike. Riyek ji bo neçarkirina Koşka Sipî bi dana fermana êrîşê ew e ku serkomarê Amerîkayê bînin ser vê baweriyê ku Îsraîl – çi bi hevkariya Îranê û çi jî bêy hevkariya wî welatî- dê êrîşî ser Îranê bike. Lewma êrîşa Îsraîlê bo ser Sûdanê dikare bi heman awayî ku dana peyamê be bo Îranê, dana peyamê bi Amerîka jî tê hesibandin.

# Rejîma Îranê û madên hişber



Efşar Ceferî

Dîroka hebûna madeyên hişber li Rojhilatê Kurdistanê li gor hilkevta coxrafî ya welatê me, vedigere bo demek dirêj, lê em dibînin ku çi demekê heta niha bi qasê van salên dawî bazirganî û bikaranîna madeyên hişber li Kurdistanê zêde û berfireh nebûye. Sedemên vê diyardeya gemar û bi xeter a civakî pirr in ku emê di vê nivîsarê de bi kurtî be jî, balê bikşînin ser van.

Her diçe rêjeya bikaranîna madeyên hişber li Rojhilatê Kurdistanê zêde dibe û bandorek rasterast dike ser civakê. Berî her tiştekê rejîma Komara Îslamî ya Îranê berpirsyarê sereke yê vê diyardeyê ye. Ji ber ku ew dixwazin vîn û îradeya ciwanên kurd lawaz û tune bikin da ku bi vê rêyê hêz û baweriya azadîxwazî û neteweyî ya ciwanên kurd control bikin. Rêya herî baş ji bo rêvebirina vê diyardeyê ji aliyê rejîmê ve, belavkirina berfireh û bidestxistina hêsan a madeyên hişber li civaka Kurdistanê de ye.

Belavbûna madeyên hişber li Kurdistanê zêde ji aliyê sîxor û dar û destekên girêdayî dezgeh û saziyên dewletê û bi taybet hêzên ewlekaiyê ve tê meşandin. Ev yek siyaset planrêjkirî û anqest ya dewletê ye ji bo ciwan û civaka Kurdistanê.

Li hemû parêzgehên Kurdistana Îranê Sipaha Pasdaran bi eşkere madeyên hişber di nav ciwanan de belav dike û kesên ku bazirganiya van madeyan dikin, di cîh de tên azadkirin. Sipaha Pasdaran mafiyaya herî mezin a belavkirina madeyên hişber e.

Hêz û dezgehên rejîma Komara Îslamî dikarin pirr bi hêsanî belavbûna madeyên hişber kontrol bikin û kesên vî karî encam didin, binçav û ceza bikin, lê ew kes loma zû tên azadkirin ku karê belavkirina madeyên hişber di nav ciwanên kurd de bidomînin. Li hemû gund û bajarên Kurdistanê ev liv û tevgera dijminane ya hêzên Komara Îslamî bo nexweşxistina civaka Kurdistanê bi şekere tê xuyakirin.

Rêjeya bikaranîna madeyên hişber li Kurdistanê vê dawiyê bi qasekê zêde bûye ku bûye yek ji pirsgirêk û gefek mezin ên civakî di nav malbatan de. Pirraniya goriyên vê fenomenê jî ciwanên kurd in. Faktorek jî ku dibe sedem ev e, hejar û bêkarî li Kurdistanê pirr zêde ye û ciwanên kurd jî bêhêvî ne ji pêşeroja jiyana xwe. Loma ciwan tûşî vê nexweşiyê dibin û pirr hêsan madeyên hişber bidest dixin.

Malbat dikare bandorek rasterast li ser pêşîgirtin ji belavbûna madeyên hişber bilîze. Hişyariya dayik û bavan di çarçoveya malbatê de, rolekî pirr mezin bo berlêgirtina vê diyardeya bi xof dikare bilîze. Bi giştî dayik û bav wisa hest dikin û difikirin ku madeyên hişber nikare gefê li jiyana zarokên wan bike û tenê tirsek li ser jiyana xelkê din heye, lê berfirehbûna bikaranîna madeyên hişber di civakê de bi qasekê xeter e ku bûye kirîz û pirsgirêkek cidî ya civakî û gefê li jiyana hemû malbatan dike.

Loma pêdivî ye ku dayik û bav pirr baş balê bidin ser hawîrdor û tevger û herwiha hatin û çûna hevalên zarokên xwe. Ewlehiya civakî her diçe kêmtir dibe, ji ber ku maşîna madeyên hişber gefek eşkere û mezin e li ser hemû pêkhateya malbat û civakê, çavdêrîkirina ciwanan erkekî sereke yê dayik û bavan e.

Komara Îslamî ya Îranê dikare gellek hêsan bazirganiya madeyên hişber kontrol bike û firoşyarên van madeyan binçav û ceza bike, lê qet nekariye û nexwestiye vê pirsgirêka bingehîn a civakî çareser bike û ji holê rake.

Ji aliyekê ve kom –kom ciwanên kurd bi tawana bazirganiya madeyên hişber îdam dike û ji aliyekî din jî bi rêya sîxor û destekdayîna hin kesên li jêr bandore dezgehên xwe, mîna şîrînî û şekrokan li kûçe û kolanên Kurdistanê, madeyên hişber bilav dike.

Stratejî û pîlana rejîma Îranê bo belavkirina madeyên hişber, tenê nexweşkirina civaka Kurdistanê ye û herwiha lawazkirin û jinavbirina îradeya ciwanên kurd e û bendewarbûna malbatan bi zarokên tûşbûyî bi vê diyardeyê ye ku dehan pirsgirêk û belayên din ji ber bikaranîna madeyên hişber tûşî wan dibin.



# Nêzîk bi 10 milyon nexwendewarên reha di Îranê de hene

**Berpirsyarê "Saziya Nêhzeta Sewadamûziya Îranê", di 19'mîn pîşangeha navnetewî a çapemenî û nûçegehaniyê de ragehand ku 9719000 kes di Îranê de nexwendewar in.**

Elî Baqirzade jî nûçegehaniya Fars re ragehand ku, nêzîk bi sê milyon û 456 hizar ji wan kesan temenê wan di navbera 10 heya 49 saliyê de ne.

Navbirî tekez li ser vê yekê kir ku di pênc salên dahatî de ev kes wê şarezayiyên bingehîn ên xwendewariyê, weke xwendin, nivîsandin, hisabkirin û xwendina Qurana pîroz bibin.



# Civaka Cîhanî derheq îdaman rejîma Îranî rexne kir

**Berpirsê Siyaseta Derve ya YE û herweha Wezîrê Karûbarê derve yê Kanadayê, serbarê rexneya ji rejîma Tehranê, nîgeraniya xwe li hember amara îdaman di Îranê de nîşan dan.**

Ca Bird, Wezîrê Derve yê Kanadayê ragehand ku rejîma Îranê serbarê vê ku piştevaniya girûpên terorîstî dike, di navxwe de jî bi awayek eşkere mafê mirovan binpê dike.

Navbirî di doma gotinên xwe de got ku rejîma Îranê mafê kêmaniyên mezhebî û netewî binpê dike, û herweha got ku Komara Îslamî weke gefekê ye bo civaka cîhanî.




Eva di demekê de ye ku Ehmed Şehîd, reportêrê taybet ê mafê mirovan a ser bi NY ragehand ku di heşt mehên derbazbûyî de 300 kes di Îranê de hatine îdamkirin.

Hevpeyvîn: Arif Vêlzî

## mam Zohrab:

## "Di kîmyabarana Helebçê de, em 700 kes bê ku birînadarekê jî bidin, me şiya xwe ji dorpêçê (mohasirê) rizgar bikin. Ew roj tu car ji bîra min naçe".



**Sohrab Babayî naskirî bi Mam Zorab, kurê Ezîz, sala 1320'ê, li Gundê Dizlî ya ser bi bajarê Nosûdê û di malbatek hejar de ji dayîk bûye.**

Di despêka zarokatiya xwe de, seba nebûna qutabxanê min nekarî dersê bixwînim û herweha seba vê ku ez Kurê mezin yê malbata xwe bûm, her di zarokatiya xwe de, min dest avête karê cotyariyê, heya ku dema çûna serbaziya min hat. Lê min bi 500 Tûmen bertîl, xwe ji çûna serbaziyê rizgar kir.

Mam Zorab çawaniya nasyariya xwe bi PDKÎ re, weha anî ziman:

"Sala 1342'an, cejnek Şahenşahî li Bajarê Nosûdê birêve çû ku piraniya xelkê dewerê têde beşdar bûn, û govend û reşbelek girêdabûn, û hevdem hêzên rejîma Paşatiyê jî di nava xelkê de rêjê diçûn. Min jî di nava rêza govendê de cih girt, ku ji nişkêve kesek hat û gazî min kir û gote min ku tu çima davetê dikî? Tu nizanî ku şerm û fedî ye ku hûn dawetê dikin? Min di bersiva wî de got çima? Cejna Îranî û cejna şahenşahî ye. Navbirî ji min re got eva cejna salvegera jinavbirina Komara Kurdistanê li Bajarê Mihabadê û Komara Azerbaycanê li Tewrêzê ye, lewma gelê Kurd nabe beşdarî vê cejnê be".

Mam Zorab ku li dema serhildana Şoreşa Eylûlê, du caran xwastiye ku tevlî refên PDK Îraqê bibe, lê seba kêmbûna temen, ewranegirtine, û cardin ew şandine mala xwe, weha bi Agiriyê re basa tevlî bûna xwe bi PDKÎ re dike: "Di sala 1358'an de PDKÎ ez weke barpirsê Şorayên Gundê me diyarî kirim û çekek jî bi navê çeka bergiriyê dan destê min û bo yekem car min çeka şerefê kire milê xwe".

Şoreşgêrê PDKÎ derheq jiyana xwe ya hevpar weha diaxive: "sala 1344'ê, li Bajarê Nosûdê, min digel Nayaft Fetahî jiyana hevpar pêk anî û berhema jiyana min ji pênc kur in".

Mam Zorab roja herî xweş a jiyana pêşmergatiya xwe weha tîne ziman: "Di dema kîmyabarana Helebçê de, dema ku em hatibûn dorpêçkirin em pir aciz bûn, lê piştî midehekê em 700 kes bê ku birînadarekê bidin rizgar bûn. Eva roja herî xweş ya jiyana pêşmergatiya min e, û tu caran ji bîr nakim û bandor xistîye ser mêjiyê min".

Roja nexweş a jiyana Zorabê pêşmerge jî vedigere bo roja cejna Qurbana sala 1368'ê. ''Roja cejna Qurbanê tevî çend hevalên xwe me sitrana Osman Hewramî lêxistibû û em pir keyfxweş bûn ku ji nişkê ve dengê qêrîn û hewara jin û zarokan bilind bû, û gotne min ku Dr. Qasimlo hat şehîdkirin. Eva roja herî nexweş ya jiyana min e''.

Mam Zorab piştî pitir ji 30 sal xebat û tekoşîna li pêxema azadiya gelê xwe de dibêje ku, tu çavnihêriyên min li partiya demokrat tunine û hêvî dikim ku pêşeroja partiya me ronî be û partiya me serkevtî be. Îro rojê min tu çavnihêrî ji partiya xwe nine û dizanim ku partiya me li gor zirûf û îmkanata ku di dest de hene ji tu tiştekê xemsarî nekiriye, lewma ez bi tewawî razî me.

Sohrab Babayî bi vî awayî gotina xwe bi dawî tîne: PDK Îranê heya niha siyaseta herî baş meşandiye, lewma daxwazê ji rêberiya partiyê dikim ku bi mistek av melevaniyê nekin û herweha ciwanên Kurdistanê! ez daxwazê ji we dikim ku guh nedin gotinên Komara Îslamî ku dibêje pêşmerge çete ne, em şoreşgêr in, Komara Îslaî heya bimîne her vê dujminê gelê Kurd be, lewma dersê bixwînin, û bo pêşeroja gelê xwe xwe, teyar bikin.

> ***Îro rojê min tu çavnihêrî ji partiya xwe nine û dizanim ku partiya me li gor zirûf û îmkanata ku di dest de hene ji tu tiştekê xemsarî nekiriye, lewma ez bi tewawî razî me***





**Ebdulla Rehîmî naskirî bi mam Ebe kurê Hisên, sala 1342'ê, li gundê Pîroze ya ser bi Bajarê Ciwanroyê hatiye dinê.**

Edbullayê pêşmerge jî her weke zarokên din ên Kurdistanê seba nebûne qutabxane û îmkanatên xwendinê nekariye here xwendegehê, lewma her di temenê zarokatiya xwe de dest davêje karê cotyariyê, heya temenê wî digîje temenê lawîniyê.

Mam Ebeyê xebatkar derheq nasyariya xwe bi PDKÎ re weha dibêje; Di despêka şoreşa gelê Îranê de, Komîteyên PDK Îranê li derdora Qorî Qelayê bûn, vî çaxî şehîd Zorab, şehîd Rostem û Kak Seyîd Riza, berpirs û peşmergeyên bi nav û deng ên Partiya Demokrat li dewera me de bûn, û ji riya wan ve min bo cara yekemîn PDK Îranê nas kir.

Ebdullayê azadîxwaz tevlîbûna xwe bi PDK Îranê re weha bo Agiriyê tîne zaiman; "sala 1364'ê, du caran ez hatim û tevlî refên PDK Îranê li derdora Bajarê Kamiyaranê bûm, lê seba kêmbûna temenê min nehatim wergirtin. Piştre dema ku PDK Îranê hat sînorên navbera Îran û Îraqê, û herweha nav axa Îraqê de, ez tevlî Ehmed Xelîfe Hisên ê Kurmetê xwe çûme nava Hêza Şaho ku meqerên xwe li Bajarê Nosûdê de ava kiribûn. Di wî çaxî de heya niha min çeka şerefê ya PDK Îranê bi destve girtiye û heya niha jî li ser xebata xwe berdewam im, û dê her berdewam bimînim jî.

Ebdullayê partîzan li dor jiyana xwe ya hevpar weha dibêje; ''sala 1374'ê, li binkeya Deftera Siyasî ya PDK Îranê li Bajarê Koyê, min digel Nesrîn Ehmedî jiyana hevpar pêk anî û berhema jiyana me jî du qîz in''.

Mam Ebe roja herî xweş a jiyana xwe weha tîne ziman û dibêje; "Bi boneya tolvekirin li hember îdamkirina 59 lawên Kurd li bajarê Mihabadê, PDK Îranê jî 59 emeliyatên şer birêve birin, ku min di her 59 emeliyatan de beşdarî kir û em di tewahiya emelyatan de jî bi ser ketin. Lê ez di wan emelyatan de du caran birîndar ketim. Cara yekemîn li navçeya Sinê û li Gundê Sû û cara dûyem jî li Gundê Nisl ya ser bi Bajarê Merîwanê birîndar ketim û her du caran jî ez ji mirinê rizgar bûm.

Navbirî herweha dibêje ku roja ku di jiyana min de pir nexweş bû û niha jî weke îro li ber çavên min e, ev e ku Kak Mistefa Hicrî berpirsê Komîsyona Siyasî Nizamî bû li Qendîlê û ez jî weke îskort di xizmet wî de bûm. Xeber dan ku Dr. Qasimlo li Viyenê şehîd kirin, em pir nerihet bûn û tu caran ew roj ji bîra min naçe.

Navbirî di doma axavtina xwe de got ku min piraniya temenê xwe heya niha di nava PDK Îranê de ji bo xizmeta gelê xwe derbaz kiriye, lewma ez hêvî dikim ku partiya me yekgirtî be da ku zehmetiyên me û xwîna şehîdên me bi xisar neçe.

Edbulla Rehîmiyê xebatka bi vê gotinê axaftinên xwe bi dawî tîne; " Xelkê Kurdistanê! daxwazê ji we dikim ku weke berê ku piştewanê Partiyê bûn, niha jî dilgermtir ji caran piştewaniya partiya xwe bikin û ez jî peyman didim ku heya roja dawî ya jiyana xwe dest ji xizmetê bernedim".



> ***Bi boneya tolvekirin li hember îdamkirina 59 lawên Kurd li bajarê Mihabadê, PDK Îranê jî 59 emeliyatên şer birêve birin, ku min di her 59 emeliyatan de beşdarî kir***

Hejmar 194, 5'ê Çiriya Paşîn a 2012

# Şaristana Merîwanê





Mecîd Cinîkanlû

***Li serdemê xebata çekdarane a gelê Kurd li rojhilatê Kurdistanê û heta îro rojê jî Kurdên Merîwanî gelek alîkariya tevgera rizgarîxwazane a netewa me kirine û gelek ji xortên wî bajarî li nav refên şoreşê de canê xwe goriyê riya rizgariyê kirine.***

Şaristana Merîwanê yek ji şaristanên parêzgeha Sinê a Rojhilatê Kurdistanê ye ku li rojavayê welatê Îranê cih girtiye û navenda vê şaristanê bajarê Merîwanê ye. Merîwan li bakûr tevî Seqiz, li rojhilat û bakûrê rojava tevî Sine û li başûr tevî Pawe û Newsûd û li Rojava tevî başûrê Kurdistanê cîran e.

Nifûsa vê Şaristanê li gorî serjimêriya sala 1385 a Rojî, 153271 kes e ku li du bajarên Merîwan û Çinare û du herêmên navendî û Serşîwê akincî ne.

Xelkê Merîwanê yên ku li gundan jiyanê dikin piranî Ajeldar û Werzêr in ku ji vê rêyê dahata malbatên xwe peyda dikin û hin ji wan jî li ser sînorên Başûr û Rojhilatê Kurdistanê seba nebûna derfetên baş ji bo dahatê,bi neçarî kasibkariyê dikin, lê rejîma Îranê wan bi Qaçaxçî bi nav dike û gellek caran wan dide ber destrêjê û wan dikûjin.

Werzêrên li herêmê pitir Gîz, Tûtin Ferengî,Tirî, Sêw û hwd... diçînin. Her wisa li gelek li zewiyên herêmê de Genim û Ceh û Nok û gellek tiştên din berhem tên ku parek mezin ji pêdiwiyên Şaristanê dabîn dikin.

Ajeldarên herêmê jî wek hemû gundên Kurdistanê Çêlek, pez û herwisa Mêşên Hingiv xwedî dikin.

Li pirtûka Mîrza Şûkirolahê Sineyî de hatiye nivîsandin ku li sala 1281'an a Rojî bi fermana Nasiredîn Şah li du hezar mêtriya gola Zirêwarê, Kelek leşkerî hatiye çêkirin û salekê paştir bi fermana Hecî Ferhad, mamê Nasiredîn Şah ev herêm berfirehtir kirine. Kela han bi Kela Şah Abad hatiye binavkirin.

Li cem Kelê jî hin malbatên herêmê tên akincî kirin. Paştir û bi derbazbûna çax li cem kela han Mizgewt,Hemam û hin cihên din tên çêkirin û hin malbatên din ji bo herêmê tên û li wir dest bi karê çandiniyê dikin û paştir seba zêdebûna xizmetgozariyan li herêmê xelk li wir akincî dibin.

Li ser navê Merîwanê bîr û ra zaf in û her kes bi awayekî navê wî bajarî tefsîr dike. Hin kes dibêjin ku Merîwan di eslê xwe de Mîroyan bûye. Jiber ku li herêmê darên daristanî yên wek Mazî, Ginî, Kezan hebûne û hin kes ji bo karê tecaretê serdana wî bajarî dikin, lê li wir akincî dibin û çimkû ew kes xelkê Merwê bûne, xelkê ew bi Merwan bi nav kirine û bi derbazbûna zeman ew nav bûye Merîwan.

Herwiha dibêjin ku seba gola Zirêwarê û hebûna qûpiyan li cem golê û hatina Mirîşkên avê li demsalên cûrbicûr jibo herêmê, ew herêm bi Mûrawiyan û paştir bi Merîwan hatiye binavkirin.

Herwisa pêka hin çavkaniyên dîrokî, Merîwan li berê bi Mêhirwan hatiye binavkirin ku bi wateya welatê evînê ye.

**Gola Zirêbarê**

Gola Zirêbarê, li nêzîkî bajarê Merîwanê ye. Dirêjiya wê 5 km û firehiya wê jî du km ye û 15 metroyan kûr e. Ava gola Zirêbarê şêrîn e û masî têde dijîn. Ava golê li kaniyên nav golê diherikin û dibine sebebê vê yekê ku çemek li golê biçe derê ku gelê herêmê ji ava wî çemî mifahê disitînin. Li nava ava golê de gelek Masî hene ku Eros masî û masiya Sipî, xwediyê girngiyekî zaf in û gel zaf caran wan masiyan ji bo xwarinê bi kar tînin.

Gola Zirêbarê gellek taybetmendiyên din jî hene ku hemû bûne sebeb ku ew herêm wek herêmekî torîstî li Îranê bihê hesibandin û xelkekî zaf ji bo geriyanê serdana vê herêmê bike.

Merîwan seba hilkevta coxrafiyayî a xwe gelek girîngî heye û dewleta Îranê li herêmê zaf cihên leşkerî ava kirine ku ji bo tepeserkirina gelê Kurd bi kar tîne. Gelê Kurd ê akinciyê wî bajarî li dirêjahiya dîroka tevgera rizagarîxwazane a gelê Kurd de gelek berxwedaniyên mezin afirandine û gelek nirxên mezin pêşkêşî doza rizgariyê kirine.

Gelê Kurd li Merîwanê her wek hemû Kurdistanê li şerê li dijî Komara Îslamiya Îranê de beşdariyekî çalakane kirin û li zaf cihan destanên mezin yên dîrokî afirandin. Rêpîvana hezaran kesî a xelkê Merîwanê li destpêka serhildana gelên Îranê û êrîşa rejîma Îranê bo ser Kurdistanê yek ji mezintirîn pêngavên xebata sivîl a gelê Kud li rojhilatê Kurdistanê tê hesibandin ku pêvajoya xebatekî nû li rûpelên dîrokê de vekir.

Li serdemê xebata çekdarane a gelê Kurd li rojhilatê Kurdistanê û heta îro rojê jî Kurdên Merîwanî gelek alîkariya tevgera rizgarîxwazane a netewa me kirine û gelek ji xortên wî bajarî li nav refên şoreşê de canê xwe goriyê riya rizgariyê kirine.



# Simkoyê Şikak û xebatên wî ên çandî



Şehab Xalidî

Dujminên neteweya Kurd hertim hewil dane ku tevgerên Kurd wek îxanetkar û kirêgirtiyê bîhaniyan û welatên derdor, û li hemen dem de serokên wan jî, wek kesên biçûk û nexwendewar nîşan bidin, eva jî di demekê de ku bixwe tewaw girêdayî bi hêz û deshilatên mezin ên herêmî û cîhanî bûne û ew tomet û boxtanên wan tenê û tenê bona têkbirina wan û bêdengkirina yekcarî a wan tevgerên rizgarîxwaz bûye.

Yek ji wan tevgeran jî, tevgera Simkoyê Şikak e ku deshilata wê demê, bona têkbirina wê tevgera bihêz ya ku ji dest wan hat encam dan, bona vê ku bi xeyalek rihet bi ser xelkê belengaz de hikûmetê bikin. Wan gelek hewil dan ku Simkoyê Şikak jî wek kesekî têkder û tevdanîkar, û tenê serok eşîrek bidin naskirin, lê cuda ji vê ku Simkoyê Şikak bi wê şoreşa xwe a pirr ji serkevtin nîşan da ku ew xwediyê bîr û ramanek berfireh û kûr a siyasî û netewî ye, li hemen dem de kar û kiryarên wî ên di warê çandî de nîşan dan ku ew kesekî gellek hişyar û têgihîştî ye û bi başî ji giringiya karên çandî bi armanca hişyarkirina neteweya xwe şareza ye. Lewra di vê rewşa pirr aloz ya wê demê de tewaya hewla xwe bona danîna rojname û xwendegehekê bikar tîne ku zarokên welatê wî ji xwendinê paşve nemînin û agehdarê rewşa derdora xwe bin û bi hişyarî ve bona rizgariya xaka xwe xebatê bikin, û tenê xwendin dikare dawiyê bi êş û bindestiya gelê wî bîne.

Lewra li Çiriya Pêşîn a sala



1913'an li bajarê Xoyê li rojhilatê Kurdistanê de ji aliyê Simko û bi serperestiya Ebdulrezaq Bederxan xwendegehek hat avakirin, da ku zarokên Kurd bi zimanê xwe yê dayîkê perwerdê bibînin. Ew xwendegeh ku di destpêkê de 29 dersxwanan têde dersa Kurdî û Rûsî xwendin, wek yek ji xizmetên herî mezin û xalek bihêz ya şoreşa Simko çav lê tê kirin ku giringî bi warê perwerdê daye. Li gorî zanyariyan li dema vekirina xwendegehê de berpirsê xwendegehê, Simkoyê Şikak û Ebdulrezaq Bedirxan gotar pêşkêş kirine. (pirtûka jiyana Ebdulrezaq Bedirxan,N: Dr. Selah Mihemed Selîm Hirurî).

Herweha li sala 1912'an de, hewlê dide ku kovarekê bi navê "Kurdistan" biweşîne ku li vê hewla xwe de serketî dibe. Ji aliyek din ve dema ku Ebdulrezaq Bediraxan bi piştevaniya Simkoyê Şikak kovara "Rojî Kurd" derkir û li çapxaneya Temedon ya bajarê Urmiyê de çap û bilav dikir, Mela Mihemedê Torcanîzade bû sernûserê wê kovarê. Herweha wê demê çend kesan hevkariya Mela Mihemed dikirin ku yek ji wan birayê mele Mihemed Torcanîzade wate Mela Ehmedê Torcanîzade bû.

Avakirina komelekê bi navê komeleya "Cîhandanî" bi alîkariya hinek kesên naskirî û xwendewar û bitaybetî bi alîkariya Ebdulrezaq Bedirxan ji xebatên çandî ên Simko bûn, ku hewil dida astê hişyariya xortên Kurd jêhel bibe.

Di rastî de ew alîkariyên Ebdulrezaq Bedirxan d gel Simkoyê Şikak ew qasê bihêzbûna hesta wî a netewî û şoreşgêrî nîşan dide. Bo selimandina vê rastiyê ez dixwazim deqê nivîseke navbirî jî bi bîr bînim ku di pirtûka Celîlê Celîl çapa yekem li sala 1999'an li Birlînê de hatiye çapkirin, û deqê wê bi vî awaî ye:

"Ji roja ku min peywendiya xwe tevî karmendên Rûsa yên leşkeriyê û sivîl danî, tucara min dengê xwe ji gotina eşkere nebiriye, ku gava ez jî bona karê Rûsyayê dixebitim, ew hemû jî bona armanca xizmeta pêşveçûna miletê min e. Daxwaza min bingehî azadiya Kurdistanê ye di bin bandora Rûsyayê da, ji ber ku nava wan dewletan da, yên ku cînarê me ne, tenê Rûsya dewleta pêşveçûyî ye û kûltûra wê ji hemûya hêsatir dikare ji riya wê va derbasî nav me bibe. Bona pêkanîna vê proyêktê ji her tiştî pêştir, divê em nîrê Turka ji ser xwe vêda bavêjin.

Ev e ew xal ku ser wê, intêrêsên me û Rûsyayê dighîjin hev".

Cuda ji wan xebatan dema ku navbirî di wê serdemê de ji aliyekê ve telegirafê datîne, bona vê ku pêwendiya wî bi hemû cihên şer re hebin, û ji aliyek din ve, dema ku wê demê piyanûyek li mala wî de tê dîtin, wê demê mirov ji astê serwextî û hişyariya wî lîderê Kurd tê digîje.

Lewra ew hêjayî rêzgirtin û bi bîranînê ye, û hewce ye xortên Kurd tu car wan serokên ku canê xwe goriyê rizgariya xaka Kurdistanê kirine ji bîr neke, û riya wan û hizr û bîr û armancên wan bike sembola jiyan û berxwedanê.

# Serê gelê me sax be

Mixabin piştî nexweşiyek giran û demdirêj, nivîskar û helbestvanê kurd Arjen Arî, roja 30. 10.2012'an bi yekcarî malavayî ji jiyan, gel û helbestvaniyê kir. Cîdest û rola wî di xizmet bi çand û ziman û helbesta kurdî de xuya û berçav e.

Ew welatparêzekî aştîxwaz, xwedî qelemek bihêz, dengek biwêr û bi soz û ramanek demokrat û serdemiyane bû.

Bi nemana Arjen, pênûsek ji jiyanê sekinî, dengek qut bû, xewn û hêviyek çilmisî û binax bû, gulek ji baxê helbesta kurdî jêve bû, rêvî û xizmetkarek ji karvanê xizmetguzariya bi ziman û wêjeya kurdî veqetiya, parêzerek aştiyê û azadîxwazek cesûr jî ji dest me çû û xisarek mezin giha edebiyata kurdî.

Em bi vê munasibeta xembar sersaxiyê dibêjin xwe, malbata rehmetî, xizm û kesên wî û hemû welatparêz, helbestvan û helbesthezên kurd, û karvanê xebata ziman û çanda kurdî.

Rehma xwedê jê be û cihê wî jî buheşta berîn be



Desteya weşana duheftînameya Agirî

## Kaniya helbestan




Bêrî Bihar

### Hêvî Cejn e

Cotek şekalên nû,

di binê balîfa min de,

Destê min di paxila
diya min de .
Min çavên xwe bi lez
girtin,
ji bo bi lez sibe
bibe…
Sibehê cejn e!..

Du roj heya nîvro rojî
bûm,
Dîya min ew dirût,
bû rojek.

Di tûrê min de
hêviyên gelek ,
Reng bi reng şekirên
cejnê.

Her reng hêviyek…
Dilbiçûk, hêvîmezin
bû zaroktîya min.

Kê ji min girt
nizanim.
Nayê bîra min…

Beribihar.com

# Agirî

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye
Ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

www.kurdistanmedia.com/kurdi
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat:
AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE
E - Mail: agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com





Jawero, gundê Niyer li rojhilatê Kurdistanê

## Serkomarek %90 ji hiqûqê xwe dide xêrxwazan

**Xozê Moxîka, Serkomarê berê yê Welatê Urugoyê, beravajî piraniya rêberên cîhanê, serbarê vê ku hiqûqê xwe yê mehane eşkere kir, ragehand ku 90 % ji hiqûqê xwe jî dide rêxistinên xêrxwaziyê.**




Seba vê yekê navbirî naznavê serkomarê herî hejar û herî bexşinde wergirt.

Navbirî di hevpeyvîna di gel rojnameya Al Mondo de regehand ku, di heyvê de 12 Hezar û 500 Dolar weke hiqûq werdigre, lê 11 Hezar û 250 Dolar ji hiqûqê xwe dibexşîne û tenê bi 250 dolarî jiyana xwe dimeşîne.

## Darayiyên rejîma Îranê li Kanadayê hatin blokekirin

**Dezgeha Dadweriya Kanadayê darayiyên Komara Îslamî bloke kirin û herweha avahiya balyozxaneya Îranê jî xistin nava rîza darayiyên bilokekirî de.**



Li gorî nûçeyan: destbiser de girtina wan darayiyên Îranê vedigere bo 13 milyon dolarên ku heyamek berî niha dezgeha Qezayî ya Amerîkayê, Îran seba hevkariya li gel girûpa Hemasê di êrîşa terorîstî de mehkûm kiribû.

Ev êrîşa terorîstî deh sal berî niha di yek ji zanîngehên Bajarê Bêytol Muqedesê de hat encam dan û têde xwendekarek Amerîkayî canê xwe ji dest da.
Dezgeha Qezayî ya Amerîkayê di sala 2007'ê de ragehand ku rêxistina Hemasê bi hevkariya rejîma Îranê ev êrîşa terorîstî encam daye.

## fîlmên tirsnak kêşa mirov tînin xwarê

**Lêkolînekê li Birîtanyayê eşkere kir ku çavlêkirina fîlmên tirsnak dibe sedema şewitandina kaloriya leşê mirov.**

Rojnameya Daylî Mîl a Birîtanî ragehand ku, encama lêkolînan vê yekê derdixe ku, dîtina fîlmek tirsnak a yek demjimêr û nîvî, dibe sedema şewitandina 113 kaloriyan di leşê mirov de, û eva ji hemberî nîv demjimêr rêçûnê ye.



